Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 83
15'ê Adarê
Buha: 150 Tûmen

# agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Newroza We Pîroz Be

Em li bere berê cejna neteweyî ya Kurdan, Newroza rengîn in.
Bi vê boneyê em pîrozbahiyên xwe yên herî germ û gurr pêşkêşî gelê Kurd bi giştî dikin.

**Desteya Weşana Agirî**





# HILBIJARTIN BI SARÎ RÊVE ÇÛN

Roja înê, gerra heştem ya bin hilbijartinên Meclisa Şêwra Îslamî li Îranê birêve çûn. Ji ber ku hilbijartin di bin siya desthilatdariya Komara Îslamî tên lidarxistin, ji hemû pîvan û mercên hilbijartineke azad, adilane û demokratîk bêpar bûn.

Li gora agahiyên herî dawî li Kurdistanê, xelk bi kêmî li ser sindoqên dengdanê dihatin dîtin. Li gund û bajarên Kurdistana Îranê ji ber baykutkirina hilbijartinan ji aliyê partî û rêxistinên siyasî yên Kurdî, bazara hilbijartinan gellek kesad û radeya beşdaran pirr kêm bû.

CNN'ê ragihand ku navendên dengdanê vala bûn û bi asteke kêm dihat dîtin ku xelk deng bide.
Li gora raporekê ku li bajarên Urmiye û Mehabadê gihîşte Rojnameya Agirî, li vî bajarî xelkê bi kêmî beşdarî hilbijartinan bû û nifûsek kêm a xelkê li ser sindoqên dengdanê dihat dîtin. Nûnerên Parlemanê
Nêzîk 44 milyon kes ji nifûsa Îranê mafê dengdanê hene. Çavnihêrî tê kirin ku rayedarên dewletê serhejmariyên ecêb û nerast derheq hilbijartinên roja înê ji bo raya giştî rabigehînin.



Li Mehabadê bazara hilbijartinên rejîmê kesad bû.
**Wêne: Mukriannews**

## 30 Hezar Kes Di Xwenîşandana 12'ê De Adarê Li Qamişloyê Beşdar Bûn

Li gorî agahiyên ku gihîştine Weşana Agirî, roja çarşem, 12'ê Adara 2008'an, di çeremîn salvegera serhildana bajarê Qamişloyê de, bêtirî 30 hezar kes ji xelkê bajarê Qamişloyê ji bo bibîranîna serhildana 12'ê Adara 2004'an meş û xwenîşandaneke mezin û berfireh lidar xistin.

Beşdarên xwenîşandanê bi armanca rêzgirtin ji şehîdên serhildana 12'ê Adarê, 5 deqîqeyan bi bêdengî rawestiyan. Nûnerên çend partî û rêxistinên Kurd di vê derbarê de ji bo beşdarên meşa han a nerazîbûnê axivîn û xelkê Qamişloyê jî bona pirotesto û şermezarkirina vê cinayeta rejîma Bees a Sûriyê malên xwe bi parçeyên reş xemilandin.



# Konferansa "Li Turkiyê Destûra Nû Ya Sivîl Û Pirsa Kurd"



***Dr. Mîro Eliyar**

Di rojên 3-4'ê Adara 2008'an de, konferansek fireh di bin navê "**Li Turkiyê destûra nû ya sivîl û pirsa Kurd**" li binkeya Parlamentoya Ewropayê li Bruksel, paytexta Beljîkayê pêk hat. Konferansa han ji aliyê sê girûp û komên **Sosyalîst, Keskan** û **Yekîtiya Lîberal û Demokratan** li Parlamentoya Ewropayê hatibû organîzekirin û xebatên wê du rojan dom kir.

Ji bo beşdarî di wê konferansê de, ev partî û rêxistin li hundirê Turkiyê hatibûn vexwendin:

-Partiya Dad û Geşekirinê-AKP(partiya desthilatdar a Serok Wezîr Teyîb Erdogan)

-Partiyên opozîsyon ên Turkiyê yên beşdar di Parlamentoya Turkiyê de

-Partiya Civaka Demokratîk-DTP(Partiya Kurdî)

-Partiya Beşdariya Gel di Siyasetê de-KADEP(Partiya Kurdî)

-Partiya Maf û Azadiyan-HAK-PAR(Partiya Kurdî)

Herwiha **Hevbendiya Demokratîk** ku ji 8 Partiyên Bakûrê Kurdistanê pêk hatiye, hatibû gazîkirin.

Ji bilî hêzên siyasî, hejmareke zaf ji kesayetî, nivîskar, nûçegihan, rêxistinên sivîl, hunermend û rewşenbîrên Kurd û Turk li hundir û derveyî Turkiyê hatibûn vexwendin.

Hejmarek xuya û berçav Ewropî(Parlamenter, kesayetiyên akademîk, rojnameger û pisporên pirsa Kurd li Turkiyê) beşdarî Konferansê bûn.

Li parçeyên din ên Kurdistanê, nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê û herwiha Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê û YNK'ê û PDK'ê hatibûn gazîkirin û beşdarî Konferansê bûn.

Hêjayî gotinê ye ku tu yek ji Partiyên Turk ên Turkiyê ji Konferansê re hatibûn vexwendin, nehatibûn û her wek"**Joost Lagendijk**" Serokê Komîsyona Têkiliyên Turkiyê û Yekîtiya Ewropayê û yek ji rêveberên Konferansê, da zanîn, her yek ji wan bi bihane û hêceteké ragihandibûn ku beşdarî Konferansê nabin.

Armanc ji pêkanîna wê Konferansê eva bû ku nûnerên hêzên siyasî, berpirsiyar, rewşenbîrên Turk û Kurd bihên û li ser naveroka Destûra Bingehîn a nû a Turkiyê bas û nîqaşan bikin, heta bizanibin ku di Qanûna Bingehîn a nû de çawa azadiyên demokratîk û cihgirkirina civaka sivîl were ewle û garantîkirin, nemaze pirsa Kurd û kêmaniyên din çi cihek di wê destûra nû a sivîl de dê hebin û bi giştî çareseriya jêhatî û hemdem ji bo pirsa Kurd bona bas, nîqaş û şiroveyan bikeve rojevê. Hewce ye guhartinên demokratîk û erênî di destûra nû ya bingehîn de, rêyê bona wergirtina Turkiyê di Yekîtiya Ewropayê de vala bikin.

Di dawiyê de hemû aliyên Kurd, Turk û Ewropî amadebûna xwe ji bo domandina wan basan îlan kirin û hêvî û xweziyên xwe dan xuyakirin ku Konferansa tê li Enqereyê bê lidarxistin.

***Nûnerê Pêwendiyên PDK Îranê di dezgeh û organên Yekîtiya Ewropayê de**

# Diyalog Take Rêya Çareseriyê

**Erfan Rehnimûn**



Roja pêncşem, 21'ê Şibata 2008'an, bi dehan hezar eskerên Turk bi çekên herî modern û pêşketî, bi hêceta serkut û şûndeketina çekdarên PKK'ê, bi bê baldan bi mafê serwerî û desthilatdariya dewleta Îraqê û Herêma Kurdistanê û binpêkirina hemû yasa û usûlên navneteweyî, çendîn kîlometran axa Herêma Kurdistanê dagir kir.

Bi xweşî ve Arteşa Turk piştî heftiyekê bê tu destkevtekê ji Herêma Kurdistanê paşde kişiya.

Di vê derbarê de çend xalên girîng hêjayê baskirinê ne:

1. Armanca sereke a dewleta Turkiyê ji wê êrîşê, serkuta PKK'ê nebû, ji ber ku PKK girûpeke Partîzan e û cihê ku PKK tê de dimîne, Arteşa Turk bi zehmet dikare dagir bike, bombarana gundan û wêrankirina piran, şahidiya wê yekê didin, ev yek tê vê wateyê ku armanca Turkiyê Kerkûk e û herwiha kêmkirina desthilata Kurdan di rêvebirina Îraqê de ye.

2. Pirsa Kurd di Turkiyê de, pirseke rewa ya 20 milyon Kurd e ku ji hemû mafên xwe bêpar in. Bêguman çareseriya pirsa Kurd li Turkiyê, tenê bi gotûbêj û diyalogê mumkin e û siyasetvanên Turk divêt vê rastiyê qebûl bikin ku di cîhana modern de nikarin bi metodên kevn û serkutê siyaseteke baş bimeşînin, dibe ku rê bidin PKK'ê jî da ku di piroseya wê pirsgirêkê de beşdar be, her wekî rêxistina Feth a Filistînê ku bibû aliyeke piroseya Aştiya navbera Ereb û Îsraîlê.

3. PKK divêt lênihêrînek li ser metod û şêweyên xebata xwe bike da ku destkevtên gelê Kurd li Başûrê Kurdistanê bêne parastin û nekevin ber gefa dujminan.

# 12 Partiyên Kurd Û Kurdistanî Di Çaremîn Salvegera Karesata Qamişloyê De, Daxuyaniyek Ji Bo Raya Giştî Belav Kirin

**DAXUYANÎ JI BO RAYA GIŞTÎ**

Roja 12 Adarê çaremîn salvegera



kareseta ku desthilata Bees ya şovînî li dijî neteweya kurd li yarîgeha bajarê Qamişlo dest pê kiribû, ku zû belavî herêmên kurdî yên din bûbû, wê karesata ku 28 kurd şehîd kiribû û li şûn xwe bêtir ji 500 birîndarî hiştibû ji wan birînên wan pirr kûr û dijwar bûn, herwiha mal û dikanên wan jî bi destê hêzên ewlekariya dewletê hatibûn talankirin û bi hezaran girtî birin zîndanan tenê ji ber ku kurd bûn.

Vê pîlanê di roja 12.03.2004’an de dest pê kiribû, li ser bingeha lîstika fotbolê di navbera tîma bajarê Dêrezorê (FITIWE) û tîma bajarê Qamişlo (CÎHAD) ku mixabin berî lîstik dest pê be, tîma Dêrezorê û piştgirên wan yên çekdar ku bi wan re hatibûn, kirin şer û pevçûn û bi hildana siloganên şovînî li dijî gelê kurd û dijî serokên wan li Kurdistana Îraqê û piştgiriya SEDAM û destekên wî dikirin, ji bo ku xelkê kurd yên hatibûn temaşeyî lîstikê û piştgiriya tîma xwe ( CÎHAD) dikirin, wan bikin ..

Hêzên ewlekarî ku gereke ew kesên Ereb yên şerxwaz bisekinandana, çûn bi rengekî eşkere li aliyê tîma FITIWE sekinîn û bi fermana tewanbar **Selîm Kebûl** Parêzgarê parêzgeha HISIÇA dest bi gulebarandin bi ser xelkên kurd de kirin, êdî pîlan bi awayekî eşkere li dijî gelê kurd li Sûriyayê dest pê kir.

Şovîniyan bi pêkanîna vê pîlana rûreş dixwestin derbek ji nişkê ve li kurd bixin ku wan pê bitirsînin, ji ber ku dibînin ku kurd ketine ber pêla guhartinên ku li dinyayê û herêma Rojhilata Navîn pêk tên û her wiha ezmûna federalî li Kurdistana Îraqê jî, lewra şovîniyan dûvik û destikên xwe ajotin ber bi hildana siloganên tund û tûj de yên ku dijî berjewendiyên gelê kurd in û ber bi karên xerab mîna şewitandin û şikandina dezgehên dewletê, da ku rêjîma şovînî ji xwe re bike behaneya dizî û kuştina kurdan û nakokiyek netewî di nav kurd û ereban de bikar bîne ku li seranserê dîrok bi hezkirin û aştî jiyane ..

Pêwîstî gotinê ye ku ev pîlan tevî encamên wê yên xerab, lê pîlan di pêkanîna armancên xwe de, biser neket û nikarîbû gelê kurd sist bike ji xebata wî ya berdewam ji bo hilanîna zor û zilma netewî li ser milê wî û avakirina sîstemek demokratîk li ser bingehek wekhevî û aştiyê ku di bin siya vê sîstemê de mafê xwe yên siyasî û çandî û civakî bidest bixe, lê belê vê pîlanê bêtir hiştibû kurd bihêztir mafê xwe biparêze û bihêz li pişt tevgera xwe ya siyasî bisekine ku ji kêlîka pêşî de di bin navê partiyên kurdî de bi hev re xebat kirin û bi serkeftin cemawerê xwe organîze kirin, li dijî vê pîlanê ya ku dixwestin hebûna kurd tune bikin, di riya meşa li pey siloganên şehirkirî ku bi hembizî dihatin hildan û tevgerê bi serkevtin karî bû dengê xwe zelal bigihîne raya niştimanî û cîhanî û karî bû vê pîlanê tazî bike ku desthilata Bees ya nijadperest bikar anîbû û pirsa kurd li Sûriyeyê kiribû bin ronahiyê û daxwaza çareserkirna wê bi rengekî demokratîk dikir ..

Bi vê bîranîna dilêş û dema em vê karesatê pirotesto û rûreş dikin ku şovîniyan li dijî gelê kurd pêk anîne, em ji aliyên tevgera kurdî li Sûriyeyê daxwaz dikin ku zû refên xwe bêtir bikin yek û herin ber bi pêkanîna kongireya xwe ya netewî û avakirina lêvegerê ku gelê me ji dereng ve li bendê ye û astengiyên ku li vir û wir hene, dikevin riya vî karî de werin rakirin, û bi dilgermî pêwendiyan bi tevgera niştemanî re vekin ku bi dengekî zelal ji doza xwe re di vê meydanê de dostan pirtir bikin.

**Silêmanî- Kurdistana Îraq 09.03.2008**

**Nûnerên Partiyên Kurd û Kurdistanî:**

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê
Partiya Sosyalîsta Kurdistan-PSK
Partiya Demokrata Kurdistanê-PDK (Bakur)
Partî Demokratê Kurd Li Sûriyê (Elpartî)
Partiya Pêşverûya Demokrat a Kurd Li Surî
Partiya Yêkitî Demokratê ya Kurd Li Sûriyê
Partiya Welatparêzên Demokratên Kurdistan-PWD
Partiya Azadî ya Kurd Li Sûriyê
Partiya Yekîtiya Kurd Li Sûriyê
Rêkevtina Demokrat a Kurd li Sûriyê
Partiya Azadiya Kurdistanê-PAK
Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê

# Lidarxistina Rê Û Resmekê Ji Bo Bîranîna Serhildana 12’ê Adarê A Qamişloyê

Roja çarşem, 22.12.1386 a Rojî(12.03.2008)an, ji bo bîranîna serhildana 12’ê Adara 2004’an a bajarê Qamişloyê, rê û resmeke berfireh di hola pirtûkxaneya giştî a bajarê Silêmaniyê de hate lidarxistin.

Partiyên birêveber ên rê û resmê ew partî bûn:

1. Partiya Azadiya Kurd li Sûriyê
2. Partiya Yekîtiya Demokratîk a Kurd li Sûriyê
3. Partiya Demokratîk a Kurd li Sûriyê
4. Partiya Demokratîk a Pêşverû a Kurd li Sûriyê

Rê û resm bi sirûda neteweyî ya “Ey Reqîb” û deqîqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij ê şehîdên Qamişloyê dest pê kir. Piştre helbestek bi navê “bo çwarem car”



“bo cara çarem” ji aliyê helbestvanê bi nav û deng ê Kurd **Şêrko Bêkes** pêşkêşî beşdaran hate kirin.

Piştre peyama her çar partiyên birêveber ên rê û resma han ji aliyê birêz **Mehmûd Mihemed**, endamê Deftera Siyasî a Partiya Yekîtiya Demokratîk a Kurd (Sûriyê) ve hate pêşkêşkirin.

Rê û resm bi pêşkêşkirina peyama partî û mêvanên beşdar di rê û resmê de hate domkirin û peyama Deftera Nûneratiya PDK Îranê ji aliyê birêz **Fuad Xakî Beygî**, hate pêşkêşkirin.

Di beşek din a rê û resmê de, **Profesor Izedîn Mistefa Resûl**, basek li ser bajarê Qamişloyê, hilkevta Cuxrafiyayî a bajarê Qamişloyê û herwiha serhildana sala 2004’ê a vî bajarî, pêşkêşî beşdaran kir.

Di dawiyê de stranek bi navê “Şehîd” hate xwendin.

Hêjayê gotinê ye ku di 12’ê Adara 2004’an de, xelkê bajarê Qamişloyê li dijî desthilatdariya şovenîstî a Bees li Sûriyayê serî hildan ku di encama pevçûna wan û hêzên rejîma Bees de, 28 kes şehîd bûn û nêzîkî 500 kes jî birîndar bûn, herwiha bi hezaran hevwelatiyên Kurd ji aliyê hikûmeta Bees ve ketin girtîgehê.

# Li Waşîngtonê Nûnerên Neteweyên Îranê Bi Kongreya Amerîkayê Re Civiyan

Waşîngton- roja pêncşem, 13'ê Adara 2008'an, civînek li Kongresa Amerîkayê ji bo nûnerên neteweyên Îranê û kêmaniyên olî ji aliyê "Girûpa Karê Îranê" bi beşdariya Kongreswomên **Şîla cekson** û Kongresmen **Mark Kîrk** û bi hevahengiya **Konseya Rêberî ji bo Mafê Mirovan** hate lidarxistin.

Civîn ji bo bas li ser rewşa mafê neteweyên Îranê di bin siya Komara Îslamî û nebaş a gelên Îranê û nemaze Azeriyan û aliyên cuda cuda ên rewşê ji beşdaran û endamên Kongresa Amerîkayê re şirove kir. Wê di axatina xwe de qala vê çendê kir ku di nava desthilata reş a Komara Îslamî de, bi yasaya bingehîn a xwe jî emel nehatiye kirine û bi kirdekî rêve naçe û benda 15 ku maf dide gelên Îranê ku bi zimanê zikmakî ê xwe bihên perwerdekirin û hînî zimanê xwe yê dayîkê bibin, rêve neçûye. Herewiha divêt gelên Îranê navekê li ser zarokên xwe danên ku ne bi dilê dayîk û bavê wan be û divê navek be ku di çand û edebiyata Farsî û Îsamê de hebe.



de hatibû pêkanîn. Di destpêkê de, civîn ji aliyê **Katrîn Portêr**, Seroka Konseya Rêberî ji bo Mafê Mirovan li Waşîngtonê û rêveberê vê civînê hate vekirin û her yek li nûnerên gelên Îranê ji beşdaran re nasandin. Xatûna Portêr got: "Eva derfeteke dîrokî ye û gavek girîng e ku em arîşe û pirsgirêkên neteweyên Îranê bixin ber ra û bala yasadanerên vî welatî û armanca vê kombûnê jî eva ye."

Di beşa gotara nûneran de, di destpêkê de, **Nîna Şey** weke Nûnera Rêxistina Azadiya Olan, bi kurtî li ser kêmaniyên ayînî, nemaze Behayî û Suniyan axavtinek pêşkêş kir. Piştre **Kît Bîglo**, Berpirsiyarê Pêwendiyên Derve yê Behayiyan li Amerîkayê li ser rewşa Behayiyan di Îranê de axivî û bi taybetî nigeraniya xwe ji yasaya nû a Komara Îslamî li dor guharîna meseb û ayînan di Îranê de anî ziman û got ku ev qanûna nû Behayiyan zêdetir dixe bin zext û givaşan.

**Faxte Zemanî**, Berpirsiyara Civata Berevanî ji Girtiyên Siyasî ên Azerî axavtinek kir û bal kişande ser rewşa xirab

**Şerîf Bêhrûz**, Nûnerê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê li Amerîkayê bi nûneriya Kurdan li Îranê axavtinek pêşkêş kir û tevî erêkirina gotinên nûnerên din derheq rewşa xirab a mafê mirovan di Îranê de got: "Li Îranê ew azar, ezyet û êşandina ku Kurd li Kurdistanê, Azerî li Azerbaycanê, Ereb li Xozistanê û Turkmen li Turkmenistanê û Belûç li Belûçistanê dikşînin, gellek berfireh in". Şerîf Bêhrûz qala rewşa xiarb a Kurdan li Îranê û bêparbûna bajarên Kurdan di warê aborî, kulturî û siyasî de kir û bala beşdarên civînê kişande ser îdam, girtin û binçavkirina keç û xortên Kurd û kuştina wan ya bê xal û xerez.

Nûnerê PDK Îranê di dawiya axavtina xwe de li ser vê yekê tekez kir û got: Nabe di Îrana pêşerojê de basa demokrasiyê bihê kirin, lê maf û daxwazên gelên ne Fars ku ji nîvê zêdetir a nifûsa xelkê Îranê pêk tînin, nehê liberçavgirtin." Wî her wiha pêşniyar kir ku siyaseta hikûmeta Amerîkayê derheq Îranê divê li ser bingeha pêkhateya rasteqîne a vî welatî be û vêc û berjewendiyên demdirêj ên Amerîkayê jî tenê di vê çendê de ye."

Di doma civînê de, nûnerêa belûçan, **Dr. Husên Bû** û nûnerê Ereban **Dr. Eltayî** her yek bi kereta xwe axivîn û rewşa neteweyên xwe û herêmên niştecihbûna wan li Îranê ji bo beşdaran bas kirin.

Di dawiyê de **Şîla Cekson** tevî spas û pêzanîn bona beşdarîkirina nûnerên gelê Îranê, ew piştrast kirin ku daxwazên wan dê bigihîje Kongreya Amerîka û aliyên têkildar dê li ser naverok û encamên vê civînê bên agahdarkirin. Wê got: " Alîkariya me bikin û bi hevkariya we, em ê di vê xebatê de (li dijî Îranê) bêguman serkevtî bibin."

Kongresmes **Mark Kîrk** bi heman awayî pêşwazî ji vê gavê kir û soz da ku ji tu cure alîkariyekê ji bo gihîjandina dengê gelên bindest û çewisandî ên Îranê bi karbidestên Amerîkayê kêmasiyê nakin. Wî jî got: "Îran tenê bi serkut û tepeserkirina neteweyên xwe têr nabe, belkî gefa ji holê rakirina welateke endamê Neteweyên Yekbûyî li cîhanê jî dike."

# DYA Li Ser Rewşa Xirab Ya Mafên Mirovan Rexne Li Komara Îslamî Girt

Wezareta Karê Derve ya Amerîkayê rapora xwe ya salane di warê mafê mirovan, roja sêşem 11'ê Adara 2008'an, weşand û rewşa azadiyên sivîl û mafê mirovan li sala 2007'an, di Îranê de xirabtir ji berê hesiband.




Rapora han di 50 rûpelan de hatiye amadekirin û rewşa mafê mirovan di 190 welatên cîhanê de daye ber nirxandin û dahûrandinê. Beşek ji raporê taybet ji bo Îranê hatiye diyarîkirin û bi giranî rexne ji Komara Îslamî tê girtin. Derheq Îranê qala vê çendê hatiye kirin ku hikûmeta Komara Îslamî a Îranê mafê welatiyan ji bo guhartinên siyasî ên aştîxwazane ji rêya hilbijartinek azad û adilane teng û bertesk kiriye.

Di raporê de hatiye: " Hin rapor derheq îdamên neheq piştî mehkemeyên neadilane hatine weşandin û hêzên ewlekariyê kesên ku ramanên siyasî hene, direvînin. Îşkence û cezayên giran bi awayekî fermî hatine qedexekirin, weke kevirbarankirin, birrîna endamê laşê mirovan, qemçîlêdan û mifahstandina bi zor û neçarî li dijî neraziyan û zîndanîkirina wan her dom dike."

Li gor raporê, hikûmeta Komara Îslamî a Îranê bi tundî û dijwarî azadiyên sivîl weke azadiya axavtin û gotinê, çapemenî, civîn, civat û herwiha azadiyên taybetî berteng dike û astengan dixe ser rêya azadiyên olî jî.

Di rapora 2007'an ya wezareta Karê Derve ya Amerîkayê derheq mafê mirovan li cîhanê de, bikaranîna tund û tûjî û astengiyan li hember xebatên kêmaniyên neteweyî û çalakiyên qanûnî û civakî ên jinan û cihûyan, Komara Îslamî rexne dike.

Di raporê de bi hûrî û berfirehî li ser binpêkirina mafê mirovan ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê û nemaze rewşa kêmaniyên neteweyî, olî, jinan, xwendekar, kedkar û çapemeniyan di Îranê hatiye tekezkirin û karnameya hikûmeta Komara Îslamî di vê derbarê de pirr reş û xirab hatiye destnîşankirin.

Di lîsteya nû a Wezareta Karê Derve ya Amerîkayê de derheq binpêkirina mafê mirovan navê gellek welat hatiye. Weke Îran, Sûriye, Misr, Lîbiya, Erebistana Seûdî, Kureya Bakûr, Bilarûs, Berme û wd...

Rêxistina Nûçegihanên Bê Sînor ji ber rakirina navê Çînê ji vê lîsteyê ku mafê mirovan bi xurtî li wir tê binpêkirin, rexne ji vê raporê girt.

# Biryarnameya 1803 A Konseya Ewlekariyê Li Dijî Rejîma Komara Îslamî Ya Îranê

**Amadekar: Azad Kurdî**

Konseya Ewlekarî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyê roja duşem, 3'ê Adara 2008'an, biryarnameyeke nû (1803) li dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê pejirand. Biryarnameya sêyem a Konseya Ewlekariyê bi 14 dengên Erê û tenê dengê bêalî yê Endonîziyayê hate pesendkirin.

Biryarnameya nû bi sedema bersivnedana rejîma Tehranê ji daxwazên Konseya Ewlekariyê re derheq rawestandina bernameya hesas a meyandina Uraniyûmê bi komdengiya endamê vê Konseyê hate pejirandin.

Xala balkêş di vê derbarê de eva bû ku her 5 endamên dayîm ên Konseya Ewlekariyê (Amerîka, Fransa, Îngilîstan, Rûsiya û Çîn) ku xwediyê mafê Vetoyê ne, dengê erê dan biryarnameyê û dawî bi wan nîqaş û gengeşan anî ku çend heyv bûn li dor bernama nukleri ya Îranê dom dikirin.

Her çiqas biryarnameya sêyem a Konseya Ewlekariyê gellek xurt û micid dorpêçên naxe ser rejîma Tehranê, lê hevdengî û lihevkirinek ku di asta navneteweyî de, ew jî di asta welatên herî bihêz yên cîhanê de pêk anî, girîngî da vê biryarnameya nû.

Di biryarnameya 1803'an de, hin baykut û dorpêçên bêtir di warê aborî û malî(diravî) li dijî rejîma Komara Îslamî hatine cihkirin.

Di biryarnameyê de ji welatên cîhanê hatiye xwestin ku vîzeyê ji wan rayedar û berpirsên vê hikûmetê nedin ku di nava kar û xebatên Etomî û leşkerî de dixebitin û navê wan kesan bi awayekî fermî ji lîsteyê hatiye zêdekirin. Bi taybet navê 13 navend û organên ku di xebatên navikî ên rejîma Komara Îslamî de çeleng û ektîv in,



di lîstê de hatiye zêdekirin.

Ji dewletên cîhanê daxwaz hatiye kirin ku ji dan û standin bi her du Bankên "Sadrat" û "Millî" re xwe biparêzin.

Di vê biryarnameyê de îcaz bi dewletan hatiye dan ku dema hewce bike, lêgerînê li keştî û balafirên rejîma Îranê bikin.

Piştî pejirandina du biryarnameyên berê, gellek bank û navendên malî ên navneteweyî, têkiliyên xwe bi rejîma Tehranê re qut kirin û rapor jêrdehatina berçav a vê astê nîşan didin.

Şîrketên mezin ên Petrolê jî lihevhatinên xwe bi rejîma Tehranê re betal kirin. Welatên mezin yên Ewropayê weke Almaniya û Fransayê pêwendiyên xwe ên aborî û bazirganî ji ber biryarnameyê Neteweyên Yekbûyî bi firehî kêm kirine.

Bê guman biryarnameya nû(1803) a Konseya Ewlekariyê dikare têra xwe zext, pirsgirêk, arîşe û tehlîkeyan ji rejîma Komara Îslamî re di warê aborî de pêk bîne. Her çend çavnihêrî dihat kirin ku biryar û ceza xurtir bin.

Xala balkêş di vê navberê de eva ye ku piştî çend mehan gotûbêjan û dûre dana biryarnameya sêyem a cezayan jî li dijî vê rejîmê, karbidestên vê rejîmê û nemaze Ehmedînijad û Xamineyî li ser helwestên xwe ên berê bîîsrar in û tekez dikin û ku ew dê pêvajoya dewlemendkirina Uraniyûmê bidomînin û guh nedin raya giştî a navneteweyî.

Îran bi meyandina Uraniyûmê dixwaze Çekên Etomî û leşkerî yên modern çê bike, lê herdem radigihîne ku bernameya wan armancên aştîxwazane hene! di halekê de ew bi nepenî û neeşkere ji bo çêkirina Çekên Etomî dixebitin. Rapora vê dawiyê ya Rêxistina Vejena Etomî ya Navneteweyî ev yek eşkere kir û selimand ku Komara Îslamî ji bo lêgeran alîkariya pêwîst bi IAEA'ê re nake. Armanca Komara Îslamî ji dirêjîdan bi pêvajoya diyalog û gotûbêjan bi welatên mezin ên cîhanê re ku bi tundî nigerane ew xebatên Komara Îslamî ne, kuştin û birandina dem û gihîştin bi meremên xwe ên gemar in. Ji ber tundajobûn û piştgirî ji hêzên terorîstî û radîkal ên Îslamî, bidestxistina çekên Etomî ji aliyê Komara Îslamî tenahî û ewlehiya cîhanê dê bixe xeter û tehlîkeyê.

# YJDK Îranê, 62'mîn Salvegera Avabûna Xwe Pîroz Kir

Bi hinceta 62'mîn salvegera avabûna xwe, Yekîtiya Jinên Demokrat yên Kurdistana Îranê, roja înê, 14.03.2008'an, rê û resmeke hêja û berfireh li hola civîn û rê û resmên giştî a PDK Îranê, bi beşariya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, **Mistefa Hicrî** û endamên Deftera Siyasî, Komîteya Navendî û hejmareke zaf ji Kadro û Pêşmergên vê partiyê û malbatên wan û herwiha hejmarek mêvanan birêve çû.

Rê û resm bi xwendina sirûda netewî a "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Piştre **Mihemednezîf Qadirî**, endamê Polîtbîroya PDK Îranê, peyama Deftera Siyasî a partiyê bi vê hincetê pêşkeş kir. Wî di vê peyamê de piştevaniya PDK Îranê ji xebata azadîxwazane a Jinên demokrat ên Kurdistana Îranê bona wekhevî û yeksaniyê di Kurdistana Îranê de eyan kir.

Di doma rê û resmê de, sirûda "Jin le



xebat da" (jin di xebatê de) ji aliyê Koma Hunerî a YJDK Îranê ve, hate pêşkêşkirin.

Piştre **Hêro Cildiyanî**, Berpirsa YJDK Îranê, peyama vê rêxistinê xwend.

Xatûna Hêro di peyama xwe de bal kişande ser dema avabûna YJKD Îranê li serdema desthilatdariya Komara Kurdistanê û ev gave weke destkevteke dîrokî û girîng a Komara Kurdistanê hesiband. Bi taybet rola Pêşewayê zana yê Kurd **Qazî Mihemed** ji bo damezrandina vê saziya jinên Kurd li Kurdistana Îranê bilind nirxand. Di doma Peyamê de Hêro îşare bi zext û givaşên rejîma Komara Îsamî a Îranê derheq jinên Îran û Kurdistanê kir û got: Jin di Komara Îslamî a Îranê de ji hebûna her cure mafeke mirovî bêpar in û herdem bi awayekî sîstematîk dijberî tevî hiqûq û daxwazên wan yên berheq tên tê kirin û her cure liv û tevgereke jinan tê serkut û tepeserkirin.

Di doma rê û resmê de, xatûna **Jiyar Qadirî**, peyama Yekîtiya Ciwanên Demokrat yên Kurdistana Îranê derheq 62'mîn salvegera damezirandina YJDK Îranê xwend.

Hêjayê gotinê ye ku di nava beşên rê û resmê de, çend stran û pexşan hatin pêşkêşkirin.

Rê û resm bi govend û dîlana beşdaran êvariya wê rojê bi dawî hat.

## Di Rê Û Resmeke Berfireh De, 8 Jinên Helbestvan, Bi Helbestên Xwe 8'ê Adarê Pîroz Kirin

Bi armanca pîrozkirin û rêzgirtin ji 8'ê Adarê, Roja Cîhanî ya Jinan, Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê, rê û resmeke helbestxwendinê ji bo 8 helbestvanên jin pêk anî. Jinên ku bi vê



boneyê helbest xwendin ev in: **Kejal Îbrahîm Xidir**, **Roj Helebçeyî**, **Bihar Mehmûd**, **Dilşa Yûsif**, **Tirê Mihemed**, **Neşmîl Elî Berzencî** û **Sazyan Talib Salih** in.

Şahiya han a helbestan seet 15'ê êvariya roja înê, 29.02.2008'an, bi beşdariya hejmarek ji endamên rêberiya PDK Îranê, hejmarek zaf ji mêvan, Kadro, Pêşmerge û malbatên wan, bi belavkirina sirûdeke hunermendên Kurd, Nasir Rezazî û nemir Merziye Ferîqî, li ser 8'ê Adarê dest pê kir.

Pêşkêşkara rê û resmê, helbestvana Kurd **Nahîd Husênî**, piştî xwendina parçe helbesteke, şairê nemir yê Kurd Mehwî û pîrozkirina Roja Cîhanî ya Jinan, daxwaz ji helbestvanan kir ku ji bo pêşkêşkirina berhemên xwe biçin ser dikê.

Li dû nasandin û xwendina kurtiyek ji jiyan, serpêhatî û kar û xebatên wan ji aliyê pêşkêşkara bernameyê, her helbestvanekê berhemên xwe ji beşdaran re xwendin û coş dan şahiyê. Rêza programê bi vî awayî bû:

Kejal Îbrahîm Xidir bi helbesta "Qelemî Jin".

Roj Helebçeyî bi qesîdeyekê, civîn dewlemend kir.

Bihar Mehûmd bi helbestên "Qerecêkî Mest" û "Pîrbûnî Beharêk" û du parçe helbestên din.

Dilşa Yûsif, helbestên **Bakûr Dilê Min** û **Cezbeya Dil** bi Kurmancî pêşkêş kir û bi germî hate pêşwazîkirin.

Tirê Mehmû bi helbestên "Namo"û "Bo Yek Nan".

Neşmîl Elî Berzencî bi helbestên "Le rojî heştem da" û çend parçe helbestên din.

Saziya Talib Salih bi helbestên "Lêwit" û "Penkey Jûrekem".

Helbestvana heştem a vê civînê, Şaira canemerg **Jîla Husênî** bû ku di navbera bernameyên şahiyê de, helbestên wê ji aliyê Nahîd Husênî ve dihatin xwendin û bi vî awayî ev jina helbestvan a wefatkirî hate bibîranîn û rêz ji xebatên wê hate girtin.

Civîn piştî 2 demjimêran bi xwendina helbeseteke Şairê Kurd Mehwî bi dawî hat.

## Şiroveya Peyvên Siyasî

Berhevkar: Omîd Esxeran
omid_anbi@yahoo.com



### Siyaset "Politics"

Siyaset (politics) ji peyva latînî a "politicus" û peyva Yûnanî a "Polic" bi wateya bajar hatiye wergirtin û pêkhatî ye ji hin şêwazan ku hikûmet bona birêvebirina kar û barên welat û di pêxema dabînkirina berjewendiyên gişt tex û qatên civakê dişopîne.

Bi giştî siyaset, şêwaza hikûmetkirin û bikaranîna desthilatê û gişt wan kar û xebatan e ku di çarçoveya desthilatên dewlet û organên din ên siyasî weke Parlemanê tên organîzekirin, di vê navberê de jî partî û saziyên siyasî ji bo beşdarîkirina di desthilatê de hewlê didin. Ji bilî vê çendê, siyaset kar û barên dîplomasî û pêwendiyên navbera welatan jî bixwe ve digire.

Zanista siyasetê xwediyê çarçoveyek berfireh e û tim wan waran bixwe ve digire ku pêwendî bi modela hikûmetkirinê, bikaranîna desthilatê û şêwaza kar û xebata organên siyasî ve heye. Zanista siyasetê weke yek ji beşên herî kevin ên zanista civakî tê hesibandin. Pirtûka Komar a **Eflatûn** yekem berhem e ku di vê derheqê de hatiye nivîsîn û tê de qala çawaniya hikûmetkirina bajarên Yûnana kevin tê kirin. Her di pirtûka han de, Eflatûn pêşniyara hikûmeta bijardeyan "Elite" dike. Piştî navhatî, **Erestû**, lêkolînek berfirehtir derheq zanista siyasî û modela hikûmetê encam daye û nivîsarên wî di vê derheqê de, bingeha zanista siyasetê pêk tînin. Di lêkolînên navhatî de, qala xalên qels û bihêz ên şêwazên cur bi cur yên hikûmetê tê kirin. Piştî bidesthilat gihîştina Dêran, Qeşeyan hewl dan ku di kar û barên siyasî de destwerdanê bikin û beşek ji desthilata siyasî bidest ve bigirin. Yekem cehda berçav di vê derheqê de, daxuyaniya Qeşeyekî bi navê **Gilasiyosê yekem** di dawiya sedsala pêncan de ye ku tê de pesendkirina liv û lebata hikûmetên ku li ser Ola Mesîh in ji aliyê Qeşeyan ve bi hewce hatiye zanîn. Fermana han ku bi yasaya Du Şûr hatiye naskirin, bi dirêjahiya sedsalên navîn dihat meşandin. Li gor yasaya han, Şah û desthilatdarên Ewropî ji bilî meşahndina kar û barên xwe, divêt piştevaniya Qeseyan jî bidest xistban.

**Nîkolo Makîyavelî**, nivîskar û siyasetvanê Îtaliyayî, lêkolînvanê herî navdar yê zanista siyasetê di serdemê Rênesansê ku di dawiya sedsala panzdeh û destpêka sedsala 16'an dijiya, pirtûkek bi navê **Mîr** nivîsandiye ku tê de teoriyên xwe derheq şêwazên desthilatdariyê şirove dike.

Şah û desthilatdarên ku hetanî sedsala 18'an li Ewropa û cihên din desthilatdar bûn, çi bi lêzanîn û çi jî bi nezaniyê ve, bîr û hizrên Makiyavelî dişopandin. Lê bi serhildana hin nivîskar û hizirvanên azadîxwaz weke **Volter**, **Montiskiyo**, **Jan Jak Roso** li Fransayê û **Can Lak** û **Can Stwart Mîl** li Birîtaniyayê, dewleta demokrat berê li Birîtaniyayê û piştre jî li Amerîka û Fransayê hate ceribandin û di heyama sedsala 19'an de, hikûmeta Parlemanî di gellek welatên cîhanê de, cihê hikûmetên dîktator û tepeserker girtin.

Li gor raya Marksîstan, şopandina her xebateke siyasî, pêwendî bi sîstema aborî a civakê ve heye û eva dibe sedem ku hizrên siyasî bandor li ser bingehên aborî hebin. Ew li ser vê baweriyê ne ku di giştî warên siyasî de, divêt helwesta aborî a hikûmetê rohn û zalal be.

Siyaset bi ser du warên navxwe û derve tê dabeşkirin. Siyaseta navxwe pêkhatî ye ji hin rê û rêbazan ku dewlet serbarê lidarxistina pêwendiyan tevî takên civakê, di kar û barên hundirîn de dişopîne û siyaseta derve jî pêkhatî ye ji hin rêbazan ku dewlet li gor hin bername, usûl û pîvanan li hember welatên din dişopîne. Ji bilî vana, siyaset ji liv û kiryarên hikûmetî re jî tê gotin.

**Çavkanî:**

**Ferhengî Ramiyarî Nîga "Azad Weledbegî"**

**Danêşnamêyê Siyasî (Politicial Dictionary) "Daryûş Aşorî"**

# 8'ê Adarê, Roja Azadî û Wekheviyê



Xelata Olaf Palme'yê ji jina xebatkar a Kurd, Pervîn Erdelan re hate dayîn

**Çinûr Qadirî**

Roja 8'ê Adarê rojeke dîrokî û girîng e, roja hildana ala xebat li dijî zilm û zordarî, tund û tûjî û cudahîdanan li dijî jinan e. Dîroka hilbijartina 8'ê Adarê, weke Roja Cîhanî ya Jinan vedigere bo dema ku meşa berfireh a jinên Kedkar ên karxaneya ristin û raçandin a bajarê "New York"ê bi armanca zêdekirina miaşê xwe û kêm û kinkirina dema kar di sala 1857'an de hate lidarxistin û meş ji aliyê Polîs ve hate tepeserkirin.

Rêxistina Neteweyên Yekbûyî sala 1975'an, ew roje bi awayekî fermî weke Roja Cîhanî a Jinan pejirand. Ji vê demê vir de hemû salekê jin li seranserî cîhanê bi meş, çalakî û şahiyan pêşwaziyê ji wê rojê dikin û bi awayên cur bi cur vê rojê pîroz dikin. Tevgera jinan xwe amade dikin ku ji berê xurttir daxwaza maf û azadiyên xwe ên zevtkirî bikin. Ev roje dibe sedema çêbûna hêviyeke nû û mezin ji pêşerojeke ron û zelal re di nav dilê tev jinan de ku di vê pêvajoyê de bixebitin. Azmûn û ceribînên xwe ên salên borî bikin bi hêvênê hevgirtin, yekîtî û bi hevrebûn û selimandina karîn û şiyanên xwe.

Bêguman xebat û tekoşîna mafxwazane a jinan û daxwaza wekheviyê ji bo edalet û wekheviyê di nava malbat û civakê di hemû warên siyasî, aborî, çandî û civakî de ye. Heta zilm û binpêkirina maf û azadiyên jinan bi vî awayê niha bimeşin, cehd û xebata wan dê her bidome.

Xaleke balkêş eva ye ku di gellek welatên cîhanê de pîrozkirina vê rojê qedexe ye. Desthilatdar pêşiya meş, semînar, konferans û şahiyên gel, nemaze jinan digirin û rê nadin çalakiyên taybet bên lidarxistin. Heke em gellek dûr neçin, welatê Îranê yek ji wan welatan e ku herdem berlêgirtinê li hember pîrozkirina vê roja cîhanî dike, yan bi her awayekê be, astengan li hember çalakiyên jinan di vê rojê de pêk tîne.

Di hikûmeta kevneperest ya Komara Îslamî de jin weke hevwelatiya duyem tê hesibandin. Ji bilî vê çendê ku jin ji gellek hiqûqan bêpar in, heta maf û azadiyên mirovî ên wan jî nahên berçavgirtin. Bo mînak dema ku jinek tê kuştin, li gor zagonên vê rejîmê, xwîna jinekê nîva xwîna mêrekî ye! Di qanûnên cezayî û sivîl ên Komara Îslamî de, dehan xalên wilo hatine bicihkirin û bi awayekî fermî jî tên rêvebirin ku bi tevahî zilm, neheqî û binpêkirina eşkere a maf û azadiyên mirovî ên jinan didin xuyakirin. Mafên dadweriyê, lixwekirinê û sepandina lixwekirina kincên îslamî, azadiyên civakî, tund û tûjiya sîstematîk a qanûnên dewletê weke yasaya kevirbarankirina jinan, cudakirina jin û mêran di nava civakê de, bêhiqûqî, zilm û çewisandin û wd... .

Di çarçoveya vê hikûmetê de, desthilatdarên olî hewlê didin ku her tiştî li ser bingeha olê ava bikin. Bo mînak di Komara Îslamî de, ji aliyê vê dewletê ve roja 8'ê Adarê, Roja Cîhanî a Jinan bi awayekî fermî nahê naskirin û xebat û çalakiyên vê rojê qedexe ne. Ew felsefeya vê rojê vedigerînin bo vê yekê ku diyarîkirina 8'ê Adarê weke Roja Cîhanî ya Jinan li ser bingeha raman û mêjiyê biyaniyan yan bi gotina wan "Rojavayiyan" hatiye danîn, lewra vê rojê wek destkevta cîhana derve dizanin û bi fermî nas nakin. Rêberên vê rejîmê roja jidayîkbûna **Fatime** keça Pêxemberê Îslamê weke Roja Jinan bi fermî nas dikin! û xelkê neçar dikin ku vê rojê pîroz bikin û çalakiyan bimeşînin. Lewra dema ku jinên Îranê dixwazin Roja 8'ê Adarê pîroz bikin û xebat û çalakiyan bimeşînin, rastî gellek asteng, dijwarî û tund û tûjiyan dibin.

Jinên xebatkar û çalakên mafên mirovan li Kurdistana Rojhilat, îsal jî di rewşeke ewlekarî – leşkerî de, roja 8'ê Adarê pîroz kirin. Rejîmê rê neda ku Pervîn Erdelan, jina xebatkar a Kurd û çalaka mafê jinan biçe Swêdê û di rê û resma wergirtina Xelata Olaf Palme'yê - ku xelata han a 2007'an, ji wê re hate dan - de beşdariyê bike. Jinên Kurd li bajarê Sine bi neçarî li çiyayê Avyerê ew roja cîhanî pîroz kirin, Li Merîwanê gef ji Şehîn Mihemedî, berpirsa Civata Jinên Merîwanê hate xwarin ku nabe Civata han bi vê boneyê tu çalakiyekê bimeşînin.

Peyama ku 8'ê Adarê bi xwe re tîne, azadî û wekhevî ye. Bê guman heta wekhevî û mirovserdestî di civaka Îran û Kurdistanê de cihgir nebe û maf û azadiyên mirovî ên nîva civakê anku jinana nehên ewle û garantîkirin, xebata heqxwaziya jinan dê her dom bike.



### Komek Ji Sazî Û Çalakên Sivîl Yên Kurdistanê:

# "Biryara Îdamkirina Sê Çalakên Sivîl Yên Kurd Betal Bikin"



Komek ji sazî û çalakên sivîl yên Parêzgeha Kurdistanê di daxuyaniyekê de, serbarê eyankirina nerazîbûna xwe derheq biryara îdamkirina **Ferzad Kemanger**, **Elî Heyderiyan** û **Ferhad Wekîlî**, daxwaz ji dezgehên dadwerî yên rejîma Îslamî bona pêdeçûn û hilweşandina biryara daliqandina sê kesên navhatî kirin.

Navê wan rêxistinên ku daxuyaniya han îmza kirine ev in:

1. Navenda Çandî-Civakî a Jiyanewe
2. Navenda Jiyar
3. Binyata Çandî-Civakî a Şaho
4. Civata Ciwanên Sine
5. Binyata Ciwanên Zagrosê

Herwiha navê 51 kes ji çalakên sivîl ku daxuyaniya han wajo kirine, di dawiya daxuyaniyê de hatiye.

# 8'ê Adarê Li Sine Hate Pîrozkirin



Civata Mafê Mirovan û Jinên Azermêhr yên Sine û her wiha komek ji xelkê vî bajarî bi hinceta 8'ê Adarê, Roja Cîhanî a Jinan, roja înê, 07.03.2008'an, rê û resmek di Heft Asiya a çiyayê Aviyerê lidar xistin.

Di vê rê û resmê de, bona rêzgirtin ji 8'ê Adarê, çend gotar û helbest ji aliyê beşdaran ve hatin pêşkêşkirin.

Her wiha di rê û resma han de, çendîn xelat (6 dest kincên Kurdî yên Jinan û 20 pirtûk), pêşkêşî çalakên Mafê Jinan hatin kirin.

### Civata Parastina Girtiyên Siyasî Û Mafê Mirovan Li Îranê:

# Canê Ferhad Hacîmîrzayî Ketiye Xeterê



Ferhad Hacîmîrzayî, yek ji wan xebatkarên mafê mirovan û endamê komîteya Dijberî tevî Îdam û kevirbarankirina Bextiyar û Jîla Îzedî, li bajarê Sine û Merîwanê ye, Ferhad ji roja 13.01.2008'an vir de, ji aliyê hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê di zîndana Êvînê de di bin îşkenceyê de ye.

Ferhad Hacîmîrzayî bi buxtana xebat li dijî ewlehiya neteweyî û hevkarîkirin tevî neyarên rejîmê hatiye girtin. Dadgeha Şoreş û binkeya Ewlekarî a rejîmê, di hemayê du mehên borî de heya niha, îzn nedane ku Ferhad tevî malbata xwe hevdîtinê pêk bîne. Navhatî her wiha ji hebûna parêzerê xwe hatiye bêparkirin.

Lewra em daxwazê ji hemû mirovên azadîxwaz û saziyên cîhanî û parêzerên mafê mirovan û gişt partî û rêxistinên siyasî dikin ku di demek herî zû de ji bo azadiya Ferhad Hacîmîrzayî, têkoşînê bikin.

# Cezaya Birrîna Dest Û Pê, Bo Hevwelatiyekî Belûçî Hate Diyarîkirin

Li gor agahiyên Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê, hevwelatiyekî Belûç, bi navê **Qazî Kerîmî,** ji aliyê dadgeha rejîmê bi buxtana dijberîkirin tevî rejîmê û "Muharibê" (dijberîkirin tevî Xwedê) cezaya birrina destê wî yê rastê û pêyê wî yê çepê bi ser de hate sepandin.

Malbata navhatî piştî agahdarbûn ji biryara han hewl dane ku ji rêya parêzerê wî, daxwaza betalkirina vê biryarê bikin, lê karbidestên rejîmê îzn nedane ku Qazî Kerîmî tevî parêzerê xwe hevdîtinê pêk bîne.

Hêjayî gotinê ye ku Qazî Kerîmî xelkê Seravan a bajarê Zahidanê ye ku sê mehan berî niha bona bidestveanîna debara jiyanê, ji rêya kasibkariyê ve, bi sedema teqîna mayînê, bi tundî birîndar bibû û piştre navhatî ji aliyê hêzên rejîmê ve tê girtin û heya niha di girtîgeha Zahidanê de ye.

# Jinên Kedkar Yên Nexweşxaneya "Tuhîd" A Sine Li Ser Karê Xwe Tên Derxistin

Li gor agahiyan, piştî bidawîhatina lihevhatina kar ya hinek li jinên kedkar yên nexweşxaneya "Tuhîd" a bajarê Sine li ser karê xwe tên derxistin.

**Îqbal Rizayî** yek ji çalakên kedkarî, ji malpera "Dastranj"ê re got: "jinên ku li gor biryara rêveberiya nexweşxaneya han tên derxistin, nêzîk bi 18 sal e ku di vê nexweşxaneyê de dixebitin".

Îqbal Rezayî dom dike û dibêje: nexweşxaneya han navendeke dermanî a Zanîngeha Zanistên Bijîşkî a bajarê Sine ye ku kedkar bi çavdêriya şîrketên peymankar û li gor lihevhatinan werdigirtine.

# Jinên Karker Di Rê Û Resma 8'ê Adarê De Beşdarî Kirin

40 kes ji jinên karker yên Seqizê tevî çalakên sivîl, bi hinceta 8'ê Adarê, Roja Cîhanî a Jinan, di şeqamên vî bajarî de meşek lidar xistin.

Li gor Nûçeya malpera "Dastranj"ê, di vê meşê de ku di şeqama Azadî a Seqizê de birêve çû, jinên beşdar dirûşmên wekhevîxwaziyê didan.

# JÎNA JINÊ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



8'ê Adarê wekî Roja Jinên Kedkar Ên Cîhanê tê pîrozkirin. Ev roja girîng û manîdar, her sal ji hêla jinan ve bi konferans, xwepêşandan, û hengameyên coşdar tê xemilandin. Di navbera jinan de pêwendiyên germ, danûstandin û şêwirdarî pêk tê.

Bi rastî aboriya vê rojê xwe dispêre dîroka dûr û kevnar. Belê roj bi awayek fermî ji hêla Dewletên Yekbûyî ve sala 1977'an wekî Roja Jinên Cîhanê hatiye qebûlkirin.

Têkoşîna jinan a ku bi mebesta yeksaniya navbera jin û mêran dest pê kiribû, roja 8'ê Adarê, sala 1857'an, li bajarê Newyorka Amerîkayê deng veda. Karberdana ku bi armanca edilandin û başkirina mafê 40 hezar karkerên jin ên ku di bin kotek û darê zorê û bi nanzikê di karxanaeyên konfeksiyon û tekstîlê dihatin xebitandin, dest pê kiribû, bi kuştina 129 jinên karker bi encam bû.

Jinên ku di êrîşa polîsan de jiyana xwe ji dest dabûn, bi beşdariya 100 hezar mirovên hestyar hatin binaxkirin.

Pîrozkirina vê rojê, xwe dispêre mêjûyeke kevn û dûr. Belê cara yekem di Konferansa Navneteweyî Ya Jinên Sosyalîst ve roja 26 -27'ê Gelawêjê li Kopenhaga Danîmarkayê ji hêla pêşenga Partiya Sosyal Demokrata Almanyayê a bi navê Klara Zetkîn ve hate peşniyarkirin. Pîrozkirina vê rojê li gellek welatê dinê hate destpêkirin. Her wiha li Swêdê jî ji sala 1912'yan û vir de ev roj tê pîrozkirin. Êdî ji wê rojê û vir de ew wekî "Roja Jinên Kedakrên Dinê " tê pîrozkirin.

Her çiqasî ku jin tenê vê rojê bi bîra her kesî tên û hemû mêrên zordest serwer û her wiha jinên bindest û bintûte, li gorê sêra dinê vê rojê pîroz dikin jî, bi rastî ne haya wan ji rewşa jinê û jiyana wê ya giştî heye û ne jî bala wan dikişîne.

Jo bo wê, hewce ye ku em hinek daneyên berbiçav li ber çavan raxînin û bala jin û mêrên ku ji ber rewşa xwe aram û xweşhal in, bikşînin ser vê mijarê. Li gorî dane û lêkolînên navneteweyî, hin agahiyên balkêş ên din ev in:

- Li gel ku zor û tundwariya herî mezin û sûcê giran li hemberî jinê pêk tê jî, tu sezayê vî sûcî nîn e.
- Li gorî daneyên zanistî tê gumankirin ku hejmareke pirr mezin a jinan (li dora 150 û 200 milyonî) piştê ku ji dayîk dibin, têne kuştin. Lawik ji keçikan bêtir têne tercîhkirin. Û zarokên keçik ji hêla bav û birayên xwe ve nayên hezkirin.
- Hejmara jinên ku ji hêla mêran ve ji bo bêrêtî û xerabiyê(fuhûşê) têne zorandin, ji 4 mîlyonan zêdetir e. Pereyên ku ji koletiya cinsî têne bidestxistin, 12 hezar dolar e.

- Bi awayekî giştî li tevê dinê, jinên ku temenê wan di navbera 15 sal û 45 salan de digihere, ji ber zilm û stembariya mêran bi kanser, tayê dikevin û hejmara jinên ku di vî warî de jiyana xwe ji dest didin, ji ya şerekî navneteweyî bêtir e.
- Her ji sê jinan yek jê an bi lêdan û kuştinê an jî bi zewaca bêdil û destavêtin re rûbirû maye. Yên ku dest diavjin wan jî bi giştî an endamên malbatê an jî meriv xizmên wan in. Ol, nîjad û çanda jinê çi dibe bila bibe, zor û tehdehiya ku jin tuşî wê dibe, rastiyeke giştî ya gerdûnî ye.
- Karê ku li tevê dinê tê kirin %66 ê wan ji hêla jinên ve tên kirin.
- Li gorî vê kedê, ji hatiniya tevê dinê, % 10 e.
- Xwedîmaltiya jinê li tevê dinê % 1 e.
- Hejmara jinên ku ji hêla mêran ve kotek û lêdanê dixwin, li bajaran % 18 û li gundan jî %76 e.
- Hejmara jinên ku şeva ewilî tuşî lêdana mêrên xwe dibin % 58 e.

Sedem û encam çi dibe bila bibe, rewşa jinê rewşa jiyana mirov a gerdûnî û jiyana mirovahiyê li ber çavan e. Bi giştê heta ku jin, ji hêla jin û mêran ve wekî mirov neyê dîtin tu carî mirovahî nikare bi awayekî aram û aştiyane bijî û behsa dahatûyeke baş û hêvîdar bike.

Jin hebe mirov û mirovahî heye. Li ser rûyê dinê çi tiştê rûmetdar û payebilind heye hemû ber û berhemên jinê ye. Şer, pevçûn, kuştin û talana karê mêr e. Belê êş û azar û keser para jinê ye. Heke jin bi xwe bihese dê tevê dinê bi aştî aramiyeke domda rû mayîn de şa bike. Bel divê pêşî jin bi xwe hay bibe û tevê mirovahiyê bi vê hêz û vîna xwe haydar bike.

*Kaniya Helbestan*

# Ji Bo Te

**Ronî ELÎ**

**Ji bo te ..**
Min xemla wêraniyê
Ji ber deriyê doheja qiranê
revand
Û bê soz .. bê axîn
Li hinavên bê guneh
Li dilê feryad
Gerand û pêçand

**Ji bo te ..**
Daholên şenga şepalan
Dîmenên şewitî
Di leylanên bê dawî de
Di lavlav û omîdên
Bê hêvî de
Dane ber kevanê nêçîrvanan

**Ji bo te ..**
Simbolên dijberan
Siloganên dîlberan
Di xunçeyên sînga buharê de
Di memik û lêvên êvarê de
Di tûrikê xwen
Û sawirên paşerojê re
Girtî hiştin û bernedan

**Ji bo te ..**
Welatekî şareza
Çemekî bê dawî
Geliyekî bi ber
Li ser pişta lawirekî
Di navbera heş û dil de
Hilgirtin
Û kirin siwar ...

**Ji bo te ..**
Bi guliyên Helbçe
Min konê evîndaran
Bilind kir û Hilda
Bi baskên Ferat û Decle re
Nameyên Pxemberan
Kîna dijber û dagîrkeran
Dane pêlan û berdan ...

# Mûsa Anter

## 1918-1992

Rojnamevan û nivîskarê bêwestan, barhilgirê derd û kulên gelê Kurd, şoreşgerê ku li dijî dijmin bi pênûs û xamê disekinî, şêxê nivîskarên Kurd, apê me ***Mûsa Anter: Şêxo, Şeyhmus Almas***, di şeva (20-21/9/1992) li bajarê Diyarbekir di taxa Seyran Tepe'ê de, bi destê dijminê gelê Kurd hate kuştin.

Helbet rola pênûsa bihiştî ne kêmî rola tivinga şoreşgerên ser çiya bû, ji ber ku camêr bi pênûsa xwe li rex şoreşgeran disekinî û şerê dijminê gelê Kurd dikir. Lê xuyaye ku ew mêranî bi dijmin re nebû ku xwe li ber tîrên pênûsa wî bigrin. Vêca bi bêbextî ew dane ber çend guleyên sor da ku ew hew bibêje:"**Divê em Kurd li benda xelkê nemînin, kes lawê bavê me tune, divê em xwe derxin rûyê dinyayê."/1/.**



Di 22'ê Şibata 1992'an de, dadgeha ewlekariya Tirkiyê, li pey hev sê dadgehmehkeme ji mamoste Mûsa Anter re danîn û bi sê nîqan(gunehan) bar lê kirin:

1 - jêre gotin: Çima di sala çûyî (1991)de, dema hilbijartinan tu li çend bajarên Rojhilatê Kurdistanê geriyayî û tu li ser daxwazên gelê Kurd axifiye?!!.

2 – jêre gotin: Çima te gotarek di rojnameya "Yeni Ulke" de nivîsandîye li ser êş, derd û nexweşiyên Rojhilatê Kurdistanê...?!!.

3 - Ew dane bersivdan li ser ew pirtûka ku wî bi Tirkî nivîsî bû bi navê Bîranînên min, wî ev pirtûk di sala 1990'î de, li Stenbolê çap û belav kiribû. Li ser vê pirtûkê Apê Mûsa ev bersiv li dadgehvan vegerand û got:

**"Hakimo! salê li Tirkiyê bi hezaran kitêb derdikevin ku giş bi Tirkî ne, û Kemalîst in, em deynakin, çi qewimî ye min jî ji salan û caran ji bo Kurdan kitêbek bi Tirkî nivîsîye..? wê çi bi dewletê bê bi vê kitêbê? heger bi vê kitêba min dewlet bihedime tê xuyakirin ku ev dewlet tewş e."/2/.**

Xuyaye ku dijmin ji berî niha ve, li serê wî digeriyan. Ji sala 1948'an de, dema ku wî yekemîn rojnameya Kurdî bi navê (Dicle Kaynağî: **Çavkaniya Dicle**), ji kîsê xwe, li Stenbolê çap û belav dikir.. Ev rojnameya yekemîn ya ku li Kurdistana Bakur tê weşandin piştî rojnameya Agiri 1929-1930.. Ji hingî ve mamoste Mûsa Anter li gor zanebûna xwe li ser doza Rojhilatê Kurdistanê disekinî û têkoşîneke ramanî dikir.

Di sala 1950'î de jî, kovareke civakî, konevanî, û serbixwe li Stenbolê derdixist, ew jî ji kîsê xwe tenê, bi navê Şark Macmuasi/ **kovara Rojhilatê**/, amanca wî ji vê kovarê ku welatê wî Kurdistan yê paşketî, pêşde here ku dewleta Tirkî lê guhdar bibe..

Di sala 1958'an de, careke din, bihiştî û çend hevalên xwe wek: Parêzer **Canip Yildirim** û **Ebdurehman Efhem Dolak** rojnameyeke rojane bi navê Ilerî Yurt**Welatê Paşketî**, li Diyarbekir derxistin. Hingê armanca wan ji vê rojnameyê ku doza Kurdî di nav xwendekarên Zanîngehê de belav bikin da ku serwextî rewşa Kurdistanê bibin. Lê ji bo gotareke Apê Mûsa ya bi navê **Kimil**, Mûsa Anter û herdu hevalên wî hatin girtin, hingê Apo Mûsa straneke Kurdî kiribû nav gotara xwe de, ew stiran ji devê keçek Siwêreklî girtibû, ev in çend malik ji wê stiranê:

**"Bi çiya ketim lo apo, çiya melûl bûn rebeno**
**Ceh seridî lo apo, genim hûrbû rebeno**
**Kimil hatê lo apo, bi refaye rebeno**
**Xwar genime lo apo, hişte kaye rebeno".**


Konê Reş_Qamişlo

Bi weşandina **kimil** û **Ilerî Yurd** de, piraniya rojnameyên Tirkan yên wê demê li dijî Apê Mûsa û hevalên wî sekinîn ta ku dewletê rojnameya wan sekinandin û ew û hevalên wî girtin, lê di roja 11.12.1959'an de, ew berdan belê piştî berdana wan bi şeş rojan ango di roja 17.12.1959'an de, careke din Apê Mûsa tevî **49** hevalên xwe hatin girtin bi sûçê Kurdayetiyê û kumonîstiyê..

Wiha di zindanê de man ta sala 1963'an, hingê ji nû biryara dadgehê hate dan, bi darvekirina **Mûsa Anter** û **Dr. Şivan: Saît Kirmizi toprak, Saît Alçi, Yaşar Kaya, Canip Yildirim**, digel 20 kesên din.

Li ser girtin û berdanê mamoste Mûsa Anter, **Newafê Qaso** ji gundê Zorava, ev serpêhatiya Apê Mûsa Anter û dadgehvan ji min re got, go: Apê Mûsa carekê ji mere got**: "Carekê hakim ji min pirsî tu çi karî dikî..? Min lê vegerand û got: Ez ji hepsê derdikevim û diçim mal karê xwe û hepsê dikim! Hakim matmayî ji min re got:Çawa?! Min lê vegerand û got: Dema ez ji hepsê diçim mal, bi derd û kulê gelê xwe ve diponijim û wiha ji neçarî ez li ser êş û birînên wî dinivîsim, dewlet jî dê bê min bigre û bixe hepsê, ma ez ne karê xwe û hepsê dikim??!"**

**Mûsa Anter**, 10 caran hatiye girtin û her cara di ku di çû hepsê, heps spî dikir û digot: Mala me ye, divê em lê miqate bin.. Û bêtirî carekê navê wî hatiye xwendin bi darvekirinê, û di tev girtinên Kurdên Tirkiyê de, Mûsa Anter hatiye girtin, ma di sala 1964'an de, nehat girtin bi 51 kesên Kurd re! an di sala 1966'an de, nehat girtin bi 244 kesên Kurd re!! an di sala 1977'an de, nehat girtin bi doza nîqa ku wî û çend hevalên xwe (***Komela kulturiya rojhilata şoreşger***) saz kirine. Girtina wî ya dawîn di sala 1990'î de, hingê belav bû ku Mûsa Anter di bin îşkence û lêdanê de, hatiye kuştin.

**Mûsa Anter** di piraniya rojname û kovarên Kurdî de, dinivîsand û alîkariya xwediyê wan dikir, bigrin ji rojnameya

(**Bariş Dunyasi**)/dinya aşitiyê/ ta **Dicle-Ferat**, **Deng** û **Dengê Serekên** û di tevan de jî, bi Kurdî yan jî li ser gelê Kurd bi Tirkî nivîsandiye, ji bilî ku ew xwediyê sê-çar rojname û kovaran bû, lê di herdu salên dawî de, Apê Mûsa rojnameyek an kovarek ne hişt û tê de ne nivîsand, nemaze di rojnameya bi nav û denga Welat de. Hingê wî di quncika bi navê **"Tîr"** de, tîr berdidan dijmin û neyarên Kurdan û birengekî zanistî ramanên xwe ji xwendevanan re şirove dikir û qet wî Kurd di ser Tirkan re, ne girtin, lê bi tenê bêtir rewşa wan û zor û stema wan dide xuyakirin, û ji wan re digot:

Ku hûn me neêşînin, mafê me bidin me, emê hez we bikin, ku hûn wekheviyê bixwazin, emê biratiya we bixwazin, gava digot:

**"Hevalên Tirkan, pirsek we heye hûn dibêjin(Dil miqabilê dil e), willeh hûn ji xwedê yeqîn bikin heta ku karê we ev kar be, em hez ji we nakin û hûn jî zanin ku di ilmê sosyal de, qayide ye ku tiştê mirov jê bitirse, mirov hez jê nake, belkî hûn di dilê xwe de, dibên qey hûnê Kurdan bitirsînin, dê bi vî awayî bibin kolê we!! Lê ez nizanim bê îro Îdara Tirkiyê dawa çi li me Kurdan dike, ma lawo li ser bextê we be, hûn hez me dikin, ku em jî hez we bi kin? Ne min ji were got: Heywan jî dijminê xwe bi bêhnê û bi dîtinê fem dikin, ma hûn her roj bên bavê me bişewitînin, zarokên me bikujin, namûsa me li ber lingan bidin, xaniyê ku bi hişkeberê, bi ser me de bihedimînin, ma dê çawa em ji we hez bikin..? Ma em Kurd wek heywanan jî nayên ku em hez kumê we yê şîn bikin."?/3/.**

Tevî ku temenê apo Mûsa Anter giha bû li ser 80 salî re, lê Şêxê nivîskarên Kurd ji nû ketibû bihara xwe û nivîsandinê, di sala dawîn de ji temenê xwe di van rojname û kovaran de dinivîsand: **Welat, Tewlo, Deng, Yeni Ulke, Ozgür Gündem, Rojname, Medya Güneşi**...lê mixabin pênûsa wî şikandin.

**Mûsa Anter** sala 1918'an de, li gundê Zivingê ji diya xwe bûye, ev gundê ku dikeve navbera wilayeta **Mêrdînê** û navçeya **Nûseybînê** de, nêzîkî tixûbê Sûriyê. Ew bi koka xwe ji malbata ***Miho Taze*** ye, ji şaxê Anter e, niha mirovên vê malbatê li **Binyaxetê** pirr in. Jina wî keça **Abdurehman Rohimî** ye ji Hekarê (Camêr ji kesên pêşîn bû, ku kurteçîroka Kurdî digel helbestan de, di kovara **Jîn** de dinivîsand) û diya jina wî neviya **Mîr Bedirxanê** mezin bû, sê zarok ji Apê Mûsa mane her sê tevî diya xwe li Ewropa dijîn, navê wan: **Dicle**, **Anter** û **Reşê**/Reşa./4/

Ji bilî giranmêriya nivîsên Mûsa Anter di kovar, rojname, pirtûk û welatparêziyê de,



camêr giranmêriya xwe li dijî polîtîka Kemalîstan da xuyakirin, gava tevî berhemên xwe bi navê Mûsa Anter diweşandin. Tevî ku navê Mûsa Anter qedexe bû. Wî qet pîş bi wî paşnavê ku Kemalîstan lê kiribûn, (Almas ) nekir.

**Apê Mûsa** xwendina xwe di avokatiyê, li Stenbolê de kuta kiribû, lê wî qet pîş pê nekir, bi tenê kar û xebatên ku pê rehet dibû, nivîsandibû. Di salên dawî de, dewleta Tirkan ji girtin û berdanên wî betilîn, vêca ew kirin bin rûniştina zorê de, li gundê wî **Stililê** ev gundê ku dikeve rojavayî Nuseybînê de, bi dor 15 Kîlometreyan. Wî wiha salên xwe yên dawîn li gundê xwe borandin, û dibin dara xwe a **Çinarê** de bîranînên xwe danîn û çendî dixwest ku dibin siya wê darê de bê veşartin. Lê mixabin zordarên Tirkan heta piştî mirinê jî nexwestin daxwazên wî bi serî bibin!! Di sala 1990'î de, hikûmetê rê danê bi çûna Stenbolê, hinge wî ew pirtûka bi navê **Bîranînên Min** bi zimanê Tirkî çap kir, ji berî vê pirtûkê jî çar pirtûkên wî yên din hatibûn çapkirin, wek: **Kimil: Reqik: 1962**, **Yara Salar: 1964**, **Birîna Reş: 1965, Ferhenga Kurdî_Tirkî:1967**.

Dawî hêja ye em çêtirîn gotin seh kin li ser zimanê nivîskar û rojnamevanê Kurd (***Huseyn Deniz***) yê ku berî xalê xwe Mûsa Anter bi kêmî heyvekê şehîd ket. Hingê wî gotarek li ser hovîtî û nedemokratiya Tirkan, dijî nivîskar û rojnamevanan yên pêşverû di rojnameya Welat de nivîsandibû.**(ji ber ku dewleta Tirk zilm û zorê li miletê xwe, li miletê Tirk dike, gelek mirovên pêşverû û welatparêz bê sûc û bê heqî dikuje û winda dike, ne democrat e û guh nade heqê mirovan, li cem ti dewletê rûmeta wê ne tuneye)/5/.**

Gava bihiştî Huseyn Deniz wiha li ser nivîskarê Tirk yên pêşverû û halê wan dinivîse, ma gelo wê çi halê nivîskarên Kurd bê, ji destê vê dewletê?!!

Em rewşa nivîskarên Kurd di dewleta Tirkî de, datînin ber çavên Serokên Dewletên aştîxwaz û demokrat, ewên ku li ser mafên mirovan disekinin û dixeyidin, bê ka wê çi ji me re bikin..? û wê çi dozê li dewleta Tirkî ya demokrat bikin?!!

Sed rehmet li giyanê Şêxê nivîkarên Kurd Mûsa Anter bibare, bihişt cîwarê wî be, û sed rehmet li tev Şehîdên Kurdan be.


Jêder:

1- Mûsa Anter, tîr! Rojnameya Welat, hejmar:13 Gulan 1992, Stenbol

2 - Mûsa Anter, mehkema xortê 77 salê, Rojnameya Welat, hejmar:3 Adar 1992, Stenbol.

3 - Mûsa Anter, tîr, Rojnameya Welat, hejmar:14 Gulan1992.

4 - Temenê Mûsa Anter gihabû 80 ê salî, belê di pasporta wî de 74 sal hatibû nivîsîn.

5 - Huseyn Deniz, Rojnameya welat, hejmara:14 Gulan 1992.


## Behmen Qubadî: "Ez Cara Yekem Û Dawî Ye Ku Li Tehranê Fîlman Dikişînim"

Behmen Qubadî, derhênerê navdar yê Kurd û sînemayê di hevpeyvînekê de bi Radyoya Farsî ziman a "Farda" yê re got: "Eva çend meh dibe ku ez li Tehranê dixwazim fîlma xwe ya nû (pêncem) bikişînim, lê berpirsiyarên Komara Îslamî rê nadin min ku ez fîlma nû çê bikim. Eva saleke ku min temen û karê xwe ji dest daye. Ew berdewam ji min re dibêjin tu cudaxwaz î û fîlmên te hemû li Kurdistanê hatine kişandin. Lewra ez cara yekem û dawî ye ku li Tehranê fîlman dikişînim.

Behmen Qubadî xwediyê 4 fîlmên dirêj e ku çendîn xelatên navneteweyî wergirtine û her wiha zêdetirî 30 kurtefîlm jî berhem anîne. Behmen xelkê bajarê Bane li Rojhilata Kurdistanê ye û temenê wî 38 e.



agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

## Sebahet Tuncel: Pirsa Kurd Ji Rêya Êrîşa Leşkerî Bo Kurdistana Başûr Çareser Nabe



Parlamentera Kurd a DTP'ê **Sebahet Tuncel**, di hevpeyvînekê de bi kanala "Al Hura" re got: Pirsa Kurdan li Turkiyê tenê ji rêya îtirafkirina bi mafên bingehîn yên Kurdan di vî welatî de çareser dibe".

Tuncelê di doma axavtinên xwe de got: "Bi raya min cihgirbûna demokrasiya realîte, parastina mafên mirovan, azadiya gotin û ramanê û pejirandina hiqûqên welatîbûnê ji bo Kurdan di warê çandî û perwerdehiyê de, dê vê pirsê çareser bike."

Parlamentera Kurd got: "Mifahwergirtin ji êrîşa leşkerî heta niha serkevtî nebûye, lewra pirsa Kurd bi rêya aştî û demokrasiyê çareser dibe.

## Îlam Serhejmariya Herî Zêde A Xwekuştinê Di Îranê De Heye



Li gora raporekê ku bîroya pêşgîrî ji xisarên civakî a ser bi Rêxistina Bêhzîstî li Îranê belav kiriye, serhejmariya xwekuştinê li Îlamê, yek ji 4 parêzgehên Kurdistana Îranê li hemû parêzgehên Îranê zêdetir e. Çavkaniya han amara navincî a xwekuştinê li Îranê %60 ji hezarê îlan kir û eşkere kir ku xwekuştinên herî zêde li Îlamê qewimî ne.

Li gora lêkolînan, pirsgirêkên civakî, aborî û nemaze kultur û deb û edetên kevneşop wekî sedemên xwekuştinan di vê parêzgeha Kurdakincî de hatine destnîşankirin. Xwekuştina herî zêde ji aliyê keç û jinan pêk tên. Rapora han dide xuyakirin ku di dibistan û xwendingehan de jî xwekujî diqewimin.

## Şehrîbana Kurdî Tevlî Newroza Hewlêrê Dibe



Li gora agahiyên ku hunermenda dengxweş ya Kurd, **Şehrîbana Kurdî** dan weşana Agirî, qirar e ew beşdarî Şahiya Newroza 2008'an a Hewlêrê be. Şehrîban roja 18'ê Adara 2008'an li balafirxaneya Hewlêrê peya dibe û bi dengê xwe ê xweş û zelal, dê coşê bide şahiya Newroza îsla li Kurdisdista azad.

Kurdistan li benda Şehîrbanê ye û Newroza 2008'an dê bi stiranên wê coş û germahiyek taybet hebe.

## Berga Sêyem A Berhemên Dr. Qasimlo Derket



Di çend rojên borî de, berga sêyem a pirtûka "**Tavgeha Heqîqet**" (**Sûlava Heqîqetê**) ji bin çapê derket û kete pêşberî xwendevanên xwe.

Di naveroka berga sêyem de, weke her du bergên berê, beşek ji berhemên şehîdê nemir **Dr. Qasimlo** hatine çapkirin û têra xwe balkêş in.

Ev pirtûke ji aliyê rêzdar **Kawe Behramî** endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê hatiye berhevkirin. Kesên ku dixwazin ji nêzîk ve nêrîn û ramanên şehîd Dr. Qasimlo nas bikin, dikarin bi xwendina bergên pirtûka Tevgeyî Heqîqetê bigihîjin merem û armanca xwe.

Ji bo vê xebata hêja, Desteya Weşana Agirî, spas û mandînebûnê ji kek Kawe Behramî dike. Ji ber ku ew xizmetek biçûke ji bo fidakariyên mezin û dîrokî ên Dr. Qasimlo ji bo gelê Kurd û nasandina dîtin û ramanên wî bi nifşa nû re.

Berga Çarem a pirtûkê jî di rê de ye.

## Wezîrê Karê Derve Yê Fransayê Tê Kurdistanê



Ajansa Nûçeyan a Peyamnêr'ê diyar kir ku **Bernard Koşner,** dostê nêzîk yê şehîd Dr. Qasimlo û gelê Kurd û Wezîrê Karê Derve yê Fransayê, qirar e di çend heftiyên tê bi armanca beşdarîkirin di vekirina Konsolxaneya vî welatî li Herêma Kurdistanê bi awayekî fermî bihê Hewlêrê.

Ajansa Nûçeyan a Fransayê raporek weşand û eşkere kir ku Bernard Koşner di konferansekê de ku Navenda Akademîk a Navneteweyî a weşana "Herlad Tribune"ê pêk anînbû îaln kir ku ew ê bi zûyî bi armanca beşdarîkirin di vekirina fermî a 2 kunsolxaneyên Fransayê li Hewlêr, Paytexta Herêma Kurdistanê û bajarê Besre li Başûrê Îraqê biçe vî welat.

Koşner dema durist a sefera xwe diyarî nekir, lê got ku ev serfer di heftiyên tê dê bê encamdan.

### Komara Îslamî Gundên Devera Qendîlê Da Ber Topan



Malpera "PUK Media"yê di raporekê de ev nûçe piştrast kir ku hêzên Komara Îslamî a Îranê sêbêdeya roja pêncşem, 13'ê Adara 2008'an, gundên devera Jarawe ya bajarê Qeladizê li Başûrê Kurdistanê dan ber topan. Di raporê de hatiye ragihandin ku di encama vê êrîş de, Îranê gundên Rêzge, Maredû, Şînewa, Beste, Aliyê Reş ên vê nahiheya bajarê Qeladizê dane ber topan. Li gora agahiyan, topbarana hêzên Komara Îslamî bo ser vê deverê 3 seetan kêşa. Rêveberê Nahiyeya Jaraweyê, **Azad Aso** got: tu ziyanên canî li gndiyên vê deverê neketiye, lê tirs û nngernaiyek xurt xistiye nav dilê gundiyan û jiyan ji wan tal bûye. Ziyanên zaf û mezin li baxçe, zavî û baxên xelkê deverê ketiye.